# Di kurdî de binavkirina nebatan

Amadekar: Ehmedê DIRIHÎ

Gelo di zimanên din de û di zimanê kurdî (kurmancî (**k**) û zazakî (**z**) = kirmanckî/kirdkî/dimilkî) de nebat çawa tên bi nav kirin? Binavkirina nebatan tê vê manayê: Bi navên sade û yekhejmar ên îlmî binavkirina nebat û grûba nebatan û danîna qaydeyan. Navên latînî hem dirêj in û hem jî gotina wan zehmet e. Lêbelê li dinyayê navên nebatan ên îlmî, bi latînî tên dayîn. Ji van navan re "**navên botanîkî**" tê gotin. Di ferhengan de jî, wek **bot** (*Morus alba*) tê nivîsîn.
Di vê nivîsarê de, min binavkirina nebatan bi kurdî (bi du zaravayên kurdî) û latînî dane ber hev. Çawa dişibihin hev, çawa tên wesifandin û manaya wesifan nîşan didin.
Ji bo navên bi kurmancî min tîpa (k) û bi zazakî jî tîpa (z) danîye ber. Ger nav di her du zaravayan de muşterek be, min tiştek nedanîye ber.
Di amadekirina vê lêkolînê de keda birayên min kek Malmîsanij û kek Roşan Lezgîn gelek e. Wan di her warî de alîkarîya min kir û bi zanyarî û pêşniyarên xwe ev xebat dewlemendtir kirin. Ez gelekî spasî wan dikim. Herweha gelekî spasdarê kek Malmîsanij im ku wî ev ji zaravayê zazakî kiriye kurmancî.

1) Hin nebat navên xwe yên latînî, ji peyvên *kurd, carduchorum, Kurdistan* yan jî herêmên Kurdîstanê werdigrin. Çend nimûne:

| **Latînî** | **Kurdî** |
|---|---|
| Alcea **kurdica** | hîro/hêro |
| Cirsium **carduchorum** | vergvaş (z) |
| Paeonia mascula **kurdistanica** | heşvil, savil (z) |
| Merendera **kurdica** | kulîlka cotarî, hanhanek, pîvok (k) |
| Centaurea **kurdica** | baxox, angelok, kanêje (k) |
| Astragalus **kurdicus** | |
| Paracaryum **kurdistanicum** | |
| Verbascum **kurdicum** | |

Li vir "kurdistanica" varyete ye û maneya "yê Kurdistanê / ji Kurdistanê, kurdistanî" dide, "carduchorum" jî bi maneya "yê kurdan" e.

2) Di latînî de, tenê navekî rast û îlmî yê her nebatê heye. Ji vî navî re "binomial" tê gotin û her cinsek bi du peyvan tê bi nav kirin. Nimûne:

| **Latînî** | **Kurdî** |
|---|---|
| Morus alba | tuya sipî (z), tûya spî (k) |

Manaya "morus"ê, di kurdî de "tuye"/"tû" ye, manaya "alba" jî di kurdî de "sipî" ye.

3) Di zimanê kurdî de navên nebatan, piranî bi îzafeya navdêran yan jî bi îzafeya rengdêran e. **Nimûne:**
şitlên **xezalan** (k); kekvila **zerde** (z); sosina **awe** (z)

4) Di binavkirina nebatan de mirov reng, bêhn, tehm, şikil û cîyê ku lê hêşîn dibe dide ber çavan.

5) Hin nebat jî bi navên heywanan tên bi nav kirin. **Nimûne:**
nanê **mirîşk**an (k); tirşikê **gay**an (z); tirşoka **gay**an (k); zûlê **kes**ayan (z); adirokê **heşî** (z); dimê **lûyî** (z).

Heke navê heywanan li pêşîyê be, yekhejmara wî tê bi kar anîn. **Nimûne:**
**dîk**penc (k); **mar**şing (k); **şêr**pûg (k); **verg**vaş (z); **xoz**mêw (z)

6) Di kurdî de carna hece tekrar dibe û li dû wan paşgira "-ik" yan jî "-ok"ê tê, bi vî hawî navê nebatê çêdibe. **Nimûne:**
**bizbiz**ok; **hedhed**ik (k); **reşreş**ik (k); **kirkir**ok (k); **lavlav**k (k); **parpar** (z); **qumqum**ok; **sorsor**ik (k); **tajtaj**ik; **wahwah**ok; **xişxiş**ik; **xumxum**ik

7) Di latînî û kurdî de, bi pêşgir û paşgiran jî navên nebatan çêdibin.

## ZAYEND (N R Û M )

Di latînî de zayenda navan heye. Nav yan nêr, yan mê û yan jî notr in. Zayend bi paşgiran tên nimandin.

| **nêr** | **mê** | **notr** | **nimûne** | **maneya peyvê** |
|---|---|---|---|---|
| -us | -a | -um | albus, alba, album | sipî |
| -er | -ra | -rum | niger, nigra, nigrum | reş(k), sîya(z) |
| -is | -is | -e | brevis, brevis, breve | kilm, kirr |
| -r | -ris | -re | acer, acris, acre | tal (k), cal (z) |

Di kurdî de, di navan de zayend, yanî **nêr** û **mê** heye. Nebat li gor **zayenda** xwe tên bi nav kirin.
Di îzafeya zazakî de paşgirên nêr "**-ê**" û "**-o**", paşgirên mê jî "**-a**" û "**-e**" ne. Di zaravayê kurmancî de, paşgira mê "**-a**" û paşgira nêr jî "**-ê**" ye.

1) Navên **dar**an mê ne.
hebîk**êra** argoşan (z)
say**êra** mîrçikan (z)
dar**a** bîyê (k)
dar**a** sêvê (k)

2) Di zaravayê zazakî de navên **birr**an (z) (= **devî** (k)) nêr in. Lê di kurmancî de mê ne û di halê pirhejmarîyê de têne bi kar anîn.
birr**ê** qalî (z); gez**o** sûrin (z); şitl**ê**(**n**) xezalan (k); şirt**ê**(**n**) çeman (k)

3) Navên **fêkî**yan mê ne.
alûnça tirşe (z); momixa reş (k); sêva bejî (k)

4) Navê **kevz**ê mê ye.
kevza awe (z); kevza avê (k)

5) Navên nebatên **alifî** yên **baqleyî** mê ne.
neflika sipî (z); argu**da** bej (z); nefe**la** sipî (k) kizi**na** reş (k)

6) Navên nebatên **alifî** yên **genimî** nêr in.
xelvaş (z); çîm; giyareş (k)

7) Navên **kulîlk**an mê ne.
vilika kutikan (z); binefşa belek (k); sosina avê (k)

8) Navên **sewze**yan bi piranî mê ne. Tenê yên ku dişibihin organa nêrtîyê, hinek jî wan nêr in (xiyar, balcan, kundir û hwd).
îsot**o** sûr (z); xeyar**ê** payîzî (z); xiyar**ê** bejî (k) kundir**ê** dolmikan (k); balcan**ê** reş (k)

## A) NAVÊN NEBATANÊN KU ÎZAFE NE

Di kurdî de navên hin nebatan wek îzafeya navdêran yan jî îzafeya rengdêran e.

**Îzafeya navdêran:**
fisa **vergî** (z)
nequrê **leglegî** (z)
saya **argoşan** (z)
vilincê **bizan** (z)
neynûka **bûkê** (k)
baqilên **keran** (k)

**Îzafeya rengdêran:**
girnûga **gilore** (z); pêçeka **sipî** (z)
garisê **stenbolî** (k); kundirên **mîranî** (k)

**Navên tewir**ên nebatan gelek caran bi îzafe ne. Wek nimûne ez çend tewirên "beqla/bakla", "neflike", "tuye" û "qerqaşe" dinivîsim:
beqlaya **gayan**/ bakla **gayan**
beqlaya **heran**/bakla **heran** (z)
beqlaya **maran**/bakla **maran**
beqlaya **mîrçikan**/bakla **mîrçikan** (z)
beqlaya **pisîngan**/bakla **pisîkan**
beqlaya **sultanî**
beqlaya **xatunan** / bakla **xatunan** / bakla **xatunî**
neflika **sipî** (z); neflika **sûre** (z)
neflika **zerde** (z); tuya **qere** (z)
tuya **sîyaye** (z); tuya **sipî** (z)
tuya **sûre** (z); tuya **tirşe** (z)
tuya **ximrî**/tuya **xumrî** (z)
qerqaşa **payîzî** (z); qerqaşa **wesarî** (z)

## B) HIN TAYBETMENDÎYÊN DINÊN NAVÊN NEBATAN

Li gor hin taybetmendîyên wan, meriv dikare li ser navên din ên nebatan weha bibêje:

1) Navên nebatan ên bi peyvên "**awe**" (z)/ **avî** (k) û "**varte**" (z):
bencra **awî** (z); kuya **awî** (z); sungê **vartî** (z)

2) Navên nebatên **yabanî**:
ce**wek** (z); cew**vaş** (z)
korek**vaş** (z); sîr**vaş** (z); şilêl**vaş** (z)
încila **zuray**/încila **zûre** (z); nehaya **bejî**/nehaya **bêjî** (z); qewaxa **pînce** (z)
saye**k**/saya **borî** (z); sîr**ik**
tirşika **zurayine**/tirşika **zureyîne** (z)
val**bor**/vala **borî** (z)

3) Navên nebatan ên li gor **cîyan**:
**asmîn** (z); **binerd**ik (k); gul**dîwar** (k); incasa **malta**yê (k); saya **binerdî** (z)

4) Navên nebatan ên li gor **alîyan** (**cîhet**an):
vasê **veraroj** (z); **verroj**/ **verrojik**/ **verarojk**/ gula **ververojî** (z); gula **berbiroj** /gul**berojk** (k)

5) Bi peyvên **bawerîyê**:
**cehnemî; cenet-cehnem;** kînger**nebî;** kuya **şêxanî** (z)

6) Bi peyvên **cinsîyetê**:
**dêlek** (z); **dêleşit** (z)

7) Bi peyvên **demê** (**wext**):
**adar**ok; gula **adarê** (k); gule**nîsan** (k); kulîlka **gulanê** (k); kuya **zimistanî** (z)

8) Bi peyvên **merivatîyê**:
**vêywek** (z); **bûkik** (k); **xalcînek** (z)

9) Bi navên **kesan**:
**elik-fatik** (k); **meyrem**xort (k)

10) Bi navên **mîtolojîk**:
**newroz**

11) Bi peyvên **tibî** (**hekîmtîyê**):
**tadar**; vaşê **tenşîyî** (z); giyayê **balûkê** (k)

12) Bi peyvên bona xususîyetên **jin**an:
beqlaya **xatun**an/**xatunî**,
bakla **xatun**an/**xatunî**
tarrê **xatune** (z); tirşoka **xatune; xatune; xatun**ek

13) Bi peyvên **xwarinê**:
**nanê** mîrçikan (z); **rûnî**; **rûnîn**

14) Bi navên **wesil**an (**organ**an):
**bilikê** heşî (z); **çimê** pisîngan, **çim**ga (z); **çav**ga (k); **goş**goz; **pence**şêr; **pence**xanim

15) Bi peyvên **şekil**an:
girnûga **gilor;** pel**pihûn** (z); **punc**vaş /**pûnc**vaş (z)

16) Bi navên **eşy**ayan:
**giştonek** (z); gul**borî;** gul**zirnayî**; **lûle**per mas**têr**ek; **qebqabik; rêzile** (z); **zel** (z)

17) Bi navên **çek**an:
**rim; singo**yê îspanî; **şimşîrî**
**topiz; xencere**

18) Bi navên **heywan**an:
binevşa **seg** (k); bûke**gur** (k)**;** derpêkê **dîk** (k); dilqoka **her**an (z); dirrrika **devan**; fise**gur** (k); gelzûnê **mîrçik**an (z); giya**beraz** (k); goşê **kutik**an (z); goşt**berx**ik (k); guh**mişk** (k); gun**pîsik** (k); gurnigê **gamêşî**; hebikê **argoşan**/saya **argoşan** (z); kardûnê **heşî** (z); kerenga **kûsî** (k); kerika **berxo** (k); kîngerê **her**an (z); kuvarkê **bizinkî** (k); kuvarkê **mîkî** (k); lepehir**ç** (k); luzê **kes**ayan (z); **marmar**oşk (k); **masî**jehr (k); merze**kew** (k); **mêşxwur**/**mêşgir** (k); nefela pîyê **balinde**yî (k); pê**canik** (k); pî**qaze** (k); piranê **meşnan** (z); rihana **mar**an; rîşê **bizinê** (k); sawinê **mîrçik**an (z); sungê **mar**an; şaxe**ask** (k); telîyê **merrayan**/**mir**teli (z); teliyê **mozik**an (z); tirîyê mamê **rûvî** (k); tizbîyê **dewarî**; vasê **kek**an (z); vasê **leglêg** (z); vasê **pisîng**an (z); va**şzerenc** (z); **vergvaş** (z); vile**heş**/**heş**vil, vil**heşik** (z); vilika **kutik**an (z); vilincê **biz**an (z); **xoz**mêwe (z); zebata **pilingî** (k)

19) Bi navên **hejmar**an:
**çar**teli/**çar**telu (z); **çar**çal/**çar**çar**; çel**pere (k)**;** **dimor**/**dimol**; gula **şêst**per (k); **hezar**gez; **hezar**reng; **hezar**tere

20) Bi peyva "**boye**" (z) (bi kurmancî "bêhn"):
**boy**invaş (z); şew**boy**

21) Bi peyvên **tehmê**:
bîbero **şîrîn** (z); helû**tirşik** (z); engura **şekerî** (z); engura **şerabî** (z); **şekir**ok; **tal**eke/**tal**eki, **tal**ik (z); **tal**ika zerencan (z); **tirş**inge/**tirş**ingî; **tirş**ik; **tirşikêre** (z); vasê **hemgînî** (z); zebeşa **tahle** (z)

22) Bi peyvên **reng**an:
belg**îzer**; beng**zerik**; binevşa **belek** (k)**;** çav**zerk** (k); engura **qerî** (z); engura **sûrî** (z); gilgilo **sipî**/girgilo **sipî** (z); goza **sîyaye** (z); gula **sûre** (z); gule**zer**; gulzêr (z); gul**zêrîn**; heb**reş** (k); îsoto **sipî** (z); kef**zer**, kev**zer**; kekvila **sipî** (z); kelemo **sûr** (z); kevza **zerkesk**; kevza**reş** (k); kok**sûre** (z); kovikê **erxiwanî** (k); kum**sûre** (z); **lalengî** (rengê mandalîn e); lêmeka **sipîye** (z); mex**mork**; sîrê kumik**mor** (k); **sor**kelem (k); sosina **sipî** (z); **sûr**dar/**sûre**dar (z)
**sûr**gule/**sûr**gul, **sûr**gulik (z)
**sûr**ince/**sûr**inci/**sûr**inc/**sor**ince/**sûr**ûnç (z)
**sûr**vaş (z); tarro **sûr** (z)**;** telîyo **sîya**/teluyo **sîya**/**sîya**teli (z); telîyo **zerd** (z)**;** tirewa **sûre** (z)**;** tûr**eşk** (k); vaşo **gewr** (z); vila **çeqere** (z); xamazeka/xanzeka/ximazeka/xamzeka **sûre** (z)**;** xerdelo **sîya; zer**goz; **zer**zeng

23) Bi peyva "**bin**":
**bin**erdî; **bin**gozik

24) Bi peyva "**dare**"/"**dar**":
**dar**benişt; **dar**çîn; **dar**gez; **dar**hulu (k); **dar**şilêr; **dar**tizbî ; **dar**ziravik (k);

gen**dar**/sûr**dar** (z)**;** gul**dar; daralînk**; **dare**nan (z); dê**dar**; mele**dar**
hişk**dar** / wişk**dar** (z)

25) Bi peyva "**gule**"/"**gul**":
**gul**bend; **gul**menşag (z); **gul**nêrgiz; **gul**qedîfe; **gul**zer; **gul**bej; **gul**bihar (k); **gul**kelem; **gul**nexwûn (k); **gula** adar; **gula** çavêşê (k); **gula** hesretê (k); **gul**ebêmiraz (k); **gul**ehingvîn (k); **gul**emî; şev**gul**

26) Bi peyva "**şa**"/"**şah**":
**ş**agul; **ş**abaqil; **ş**abelû; **ş**abelûyêre/ **ş**ablêre"/"**ş**albêre (z)

27) Bi peyva "**vaş**" (z) yan jî "**giya**" (k):
**vaş**ê bitrî (z); **vaş**ê derban (z); **vaş**ê genimî (z); **vaş**o nemir (z); **vaş**ê sawinî (z); **vaş**ê şitî (z); **vaş**ê tuzbeyan/vaşê tuzbûn (z); **vaş**ê ziwanok (z)

**giya**behlûlk (k); **giya**civa (k); **giya**gewrik (k); **giya**girêçk (k); **giya**jehrik (k); **giya**mêşxur (k); **giya**şermîn (k); **giya**yê ferîşteyî (k); **giya**yê xanimê (k); **giya**yê kirman (k); hêz**giya** (k); hirç**giya** (k)**;** şûr**giya** (k)

28) Bi peyva "**telî**"/"**teli**"/"**telu**" (z) yan jî "**stirî**" (k):
mir**teli** (z)**; sîya**teli (z)

agir**stirî** (k); **stirî**beloq (k); **stirîk** (k); **stirî**mişk; **stirî**per (k); **stirî**yên çavbeloq (k); **stirî**yên gêxanê (k); **stirî**yên maran (k); **stirî**zerk (k)

29) Bi peyva "**vile**"/"**vil**", "**vilike**"/ "**vilik**" (z) yan jî "**kulîlk**" (k):
ça**vil** (z); heş**vil** (z); kek**vil** (z); koz**vilik** (z); sa**vil**/sa**vul** (z); **vil**heşik (z)

**kulîlka** bayê (k); **kulîlka** cotarî (k); **kulîlka** gizbelokê (k); **kulîlka** hespan (k); **kulîlka** hesretê (k); **kulîlka** newalan (k); **kulîlka** nîsanê (k); **kulîlka** qesar (k); **kulîlka** şewatê (k); **kulîlka** tolgînê (k); **kulîlka** xezalan (k); **kulîlka** zehferan (k)

30) Bi peyva "**pîvaz**" (k):
**pîvaza** çolê (k); **pîvaza** guran (k); **pîvaza** hirçan (k); **pîvaza** kuçikan (k); **pîvaza** kurdî (k); **pîvaza** kuvî (k); **pîvaza** maran (k); **pîvaza** genî (k); **pîvazî** (k); **pîvaz**ok (k); **pîvaz**xag (k)

31) Hin navên nebatan bi tekrarkirina peyvekê çêdibin:
**kef**kef**ok**; **mij**mij**ok**; **peq**peq**ok**; **şeq**şeq**ok**; **tas**tas**ik**; **tep**tep**ik**; **teq**teq**ok**; **xaş**xaş**ik**

## C) YÊN KU BI PÊŞGIRAN ÇÊBÛNE

**bê-**
fasulyeya **bê**dasî/faslêya **bê**dasî (k)
gorcala **bê**teli (z); gula **bê**miraz (k)
vila **bê**koke (z); vaşo **bê**kok (z)

**zir-**
Pêşgira "**zir-**" maneya "yabanî" û "sexte, nerast" dide. **Nimûne:**
**zir**baqle (k); **zir**catir (k); **zir**fistiq (k); **zir**hewr (k); **zir**hêjîr (k); **zir**leylanq (z); **zir**sosin (k); **zir**şemamok (k); **zir**tolike (z)

## Ç) YÊN KU BI PAŞGIRAN ÇÊBÛNE

**-eke/-eki/-ek/-k**
derzî**nek**
kelaw**ek** (z)
kor**ek** (z); lê**mek** (z); padus**eke**/padus**eki**/ padus**ek** (z); say**ek** (z); sîn**zek** (z); şîr**zek** (z)
vey**veke**/vey**wek** (z)

**-êre**
alûnç**êre** (z); bey**êre** (z); dirrik**êre** (z); findiq**êre** (z); goz**êre** (z); henar**êre**/nalb**êre** (z); kinay**êre** (z); lûxp**êre** (z); mahş**lêre**/maş**lêre** (z); payîz**êre** (z); qêlik**êre** (z)**;** say**êre** (z); tey**êre** (z); val**êre** (z); vam**êre** (z); xib**êre** (z); zerdalîy**êre** (z)

**-ik**
derzî**nik**/dêrzî**nik**; gez**ik**; sûrpenc**ik** (z); sûs**ik**; şirt**ik**

**-in/-yin/-în/-yîn**
pil**xin** (z); tarro gilerz**gîn** (z); telî**yin**/telu**yin** (z); zer**în** (z)

**-ok**
adir**ok**; gez**ok**; kiz**nok**; silq**ok**; sîrm**ok**; şeq**ok**; tirş**ok**; xezal**ok**; zengil**ok**

## D) NAVÊN KU BI FORMÊN CIHÊ TÊNE GOTIN

hirmî (k): hermê, hermî, hermû, hurmî, hurmê
tirî (k): tirih, turî
murî (z): meroe, meroy, miro, miroy, mirwa, mirwi, mura, murîye, murû, mûrû

## E) NEBATÊN KU BI NAVEKÎ TÊNE GOTIN

| Kurdî | Latînî |
|---|---|
| Anix | Satureja hortensis |
| Anix | Mentha arvensis |
| Anix | Mentha longifolia |
| Anix | Pimpinella anisum |
| Anix | Thymus fallax |
| Anix | Origanum munzurense |

## G) JI NAVÊN NEBATAN ÇEND GOTINÊN PÊŞÎYAN Û ÎDYOM

**Zazakî:**

*Îdyom:*

Awe dekewtiş **şekok**e.
**Beng** werdiş.
Bi qasê **goze** bîyayîş la **gozêre** ra qisey kerdiş.
Çûleyê **vame** denêkerdiş.
Deyî şarî gay û bizî, deyî mi **gulnêrgîzî**.
Hênî pûne ra aciz o, **pûne** zî şino çimeyê hênî de beno zergûn.
Herdîşe **xas**, qine **pîyaz** bîyayîş.
Kêna şargê **gul**an a, waştîya vîst û hewt tenan a.
**Korek** dest ra nêrişîyayîş.
Mesela **sîr** û **pîyaz** kerdiş.
Mi eşt **gozêre**, şi gina **mazêre**.
Mi eşt **sayêre**, şi ame **tuyêre**.
Mîze verdeno **telî**, keno wişk.
Ne **pîyaz** werdiş, ne fek veşayîş.
**Nehey**ê serê tahte bîyayîş.
Pele **kelmayêre** bîyayîş.
Sey girê **darî** bîyayîş.
Sey **pirparî** zêdîyayîş.
**Sîr** û **pîyaz** ra qisey kerdiş.
Şemo birayî Mamî, **gozan** bedelneno bi **vamî**.
To **vile** dîy, tira darû çîy.
**Xele** bi firîk, mele bi şirîk.
Zîre **korekî** vîyartiş.

*Gotinên pêşîyan:*

**Goz**ê pûçî xirexir kenê.
Her **vaş** kokê xo ser o beno zergûn.
**Pîyaz** çiqas firk bo ende sere keno pîl.
Sereyê **pîyazî**, qina **pîyazî** yew î!
Welî ra **telî**, **telîy**î ra welî kuweno.

**Kurmancî:**

*Îdyom:*

Ava goşt û **balcan**a, ne xwar ne da cîrana.
Ava ser **berûy**an, wek zavayê dilê xesûyan.
**Avîlok** zî nexşê xwedê ye.
Baxçê **gul**a, para bêaqila.
**Berû** ji darê ketî, dar nasnekirî.
Bi dilê keran bimîne, qevdek **baxdenûs** namîne.
Bi eşqa **mewija**, dil diçe **guvîj**a.
Bi serîyek **sîr** nekirin.
Bi şev **şemamok** bi roj pîrebok bûyin.
Bizrê **pirpar**ê bûyîn.
Bo xatirê **gulê**, **dirik** dikeve paşîlê.
Bûyîn **dirika reş.**
Bûyîn **îsot.**
Çelleyê erebî û **firîgên nokan**?!.
Çi zanit qedrê **gulê**, kerbeş divêt kerê reş.
Çil kilamên hirçî ne, hemû jî li ser dara **hermî** ne.
**Dar**ê min kulavê min, rehmet li dê û bavê min.
Dibê qey **sêvek** e, kirine du felq. (Teşbîh)
Dimirim dibiecim; **ceh** dibêjê ez **birinc** im.
te can e, ê me **balcan** e?/ te can e, ê min **balcan** e?.
**Endilko** bavê keko, tekê min o, tekê keko.
**Garis** ji destan nerijîn.
Gayê fiso, nan **garis** o!.
**Gul**a geş dane ber pozê kerê reş.
Ha namûs ha **baxdenûs**!.
Heft çîrokê hirçê ne, her heft jî li ser **hermê** ne.
Heke **xiyar** e, ji tûtikê ve dîyar e.
Herçî ber e, **gula zer** e.
Heya herî bigre **xernûf**.
Hezîran hizirî, **giya** li baskê kizirî.
Kakilê **gûzê** bûyin.
Kes **pîvaz**an pê hûr nake.
Kirin wek **pincar.**
Li ser **dirik**an rûniştîn.
Lomeya **pîvaz** ji **sîr** kirin.
Mala bavan **gula** geş, mala mêran roja reş.
Maneya nedayînê, "werîs li **garis** e.".
Mar ji **pûng**ê aciz e, **pûng** jî diçe li ber qula wî hêşîn tê.
Min **sîr** nexwarîye ku bîhn ji devê min bê!.
Nan heye, av heye, **pîvaz** heye, lo lo tu çima dimirî?.
Nav gîya de **tolikê** begemkirin.
Ne dixwim **gêlaz**an ne didim hevrazan.
Ne kortigê **kereng**an bûyin.
**Nîsk** kirin gîsk.
**Nok** jî dibêje pozê min heye!.
**Pincar**a çiyayekî bûyin.
Pîrê nemir bihar tê, kero nemir **qîvar** tê.
Qîz **sêva** li darê ye, her kes çoyê xwe davêje.
**Sêva** çê para hirçê.
**Sîr** jî ji **pîvaz** re dibêje "wêde here, bîhn ji te tê!".
**Tene** bûn firîg, mele bûn şirîg.
Tovê **pirpar**ê bûyîn.
Ya tûrek **mêwij**, ya kelemekî tûj.
Zarok **kulîlk**a malan e. (Teşbîh)
**Zebeş** neçûyîn dêv.

*Gotinên pêşîyan:*

**Dar** bi berê xwe şîn e.
**Dar û devî** bi guh in!
Dara **hirmîyan sêv**an nade!
**Dar**ê min kulavê min, rehmet li dê û bavê min.
Demek a **kulîlk**an e, demek a **sosin**an e.
**Genimê** dewsa **kizinê**, berxê li ber bizinê, mêrê bindestê jinê, her sê Hesabê mirinê.
Germ germa **tûyan** e, kêf kêfa rûtan e.
**Giya** di bin kevir de namîne.
**Giya**yê hewşê ji xwedî re tahl e.
**Gul** bê bîhn nabe.
Her **giya** li ser koka xwe şîn tê.
Ji **sorik** patîle çênabe.
Ji **şîlanê** nîr çênabe.
Ker ji **nefelê** fahm nake.
**Kundir**ê mîranî, çêtir e ji şekirê şîranî.
Nan nanê **genimî**, bext bextê mêran.
Nanê **gilgil** ji tunebûnê çêtir e.
**Nok** tê li kokê.
**Petêxên zer** para kûsiyan e!
Pîr bi **pîvong**ê carek tê xapandin.
**Pîvaz pîvaz** e, çi sor e çi sipî ye.
Rojek a **gulê** ye, yek a **gulşîlan**ê ye.
Serîyek **pîvaz**, bîhnê berdide beroşekê.
şohreta çeman **dar û bî**, şohreta qîz û bûkan şar û temezî.
Tebax e, **tirî** bax e.
Temûz e, kakil kete **gûz** e.
Xwedîyê **xiyar**ê çilmisî, ne dixwe ne dide kesî.
Zarê şîrîn, **pîvaz**a tûj dike hinguvîn.
**Zebeş** bi dengê xwe, **hinar** bi rengê xwe.
**Zebeş** ji xwarinê re, dendik jî danînê re.
Zor **gizêr**ê radike.

## Çavkanî


Baytop, Prof. Dr. Asuman, Bitkilerin Bilimsel adlarındaki Niteleyiciler ve Anlamları, İ.Ü Ecz. Fak. Yayınları, İstanbul, 1995
Baytop, Prof.Dr. Turhan, Türkçe Bitki Adları Sözlüğü, TDK Yay. Ankara, 1997
Bedîrxan, Celadet Alî, Ferhenga Kurmancî-Frensî, Kovara Vate, Stockholm, hûmare: 1-18 (1997-2002)
Davis, P.H., Flora of Turkey and the East Aegean Islands, 10 cîld, Edinburgh (1965-1988)
Erdem, Turan, Ferhenga Zazakî-Tirkî/Tirkî Zazakî, Doz Yay. İstanbul 1997
Farqînî, Zana, Ferhenga Kurdî-Tirkî, Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê, İst., 2004
Farqînî, Zana, Türkçe-Kürtçe Sözlük, Enstîtuya Kurdî ya Stenbolê, İst., 2000
Gruba Xebatê ya Vateyî/Vate Çalışma Grubu, Türkçe-Kırmancca(Zazaca) Sözlük/Kırmancca(Zazaca)-Türkçe Sözlük, İkinci Basım, Weşanxaneyê Vateyî, İstanbul, 2004
Guest, Evan, Flora of Iraq, Ministry of agriculture Republic of Iraq, 9 cîld, Baghdad, 1966
İzolî, D., Ferhenga Kurdî-Tirkî, weşanên Deng, İstanbul, 1992
Malmisanij, Zazaca-Türkçe Sözlük/Ferhengê Dimilkî-Tirkî, Weşanên Deng, İstanbul, 1992
Özcan, Mesut, Zazaca-Türkçe Sözlük, Kaynak Yayınları, İstanbul, 1997
Polat, Edip, Bilim Dilinde Kürtler, Evrensel Basım Yayın, İstanbul, 2004
Qazzaz, Shafiq, Kurdish-English Dictionary, Aras Press and Publishers, Erbil, 2000
Saadalla, Salah, Saladin's English-Kurdish Dictionary, Avesta Basım Yayın, 2000
Tazegül, Emrullah, Tarımsal Bilimler Sözlüğü, cild I-II, İzmir, 1987
Turgut, Harun, Zazaca-Türkçe Sözlük, Tij yayınları, İstanbul, 2001
Vate (kovara kulturî), Stockholm, hûmare, 1-25 (1997-2005)



KURMANCÎ
MAGAZINE LINGUISTIQUE KURDE
Supplément du Bulletin de liaison et d'information
N° C.P. : 65913 A.S.



106, rue La Fayette, 75010 Paris
France, Tel. : 00 33 (0)1 48 24 64 64
*www.fikp.org*
*Directeur de la publication :* Reşo ZÎLAN
*Réalisation :* S. ILITCH & M. HASSAN